Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federal de

Hejmar: 120
7'ê Çiliya Pêşîn a 2009
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

Rapora Siyasî Ya Sekreterê Giştî Yê PDKÎ Bo Heftemîn Civîna Komîteya Navendî
*Rûpela 2 - 7*



# KOMARA ÎSLAMÎ NE BI XELKÊ WELAT RE RAST E, NE JI CIVAKA CÎHANÎ RE RASTIYAN DIBÊJE

Tevî rêveçûna gerek nû û dubare ya civînan di navbera Komara Îslamî a Îranê û welatên 5 + 1, di destpêka vê mehê de, pirsa bernameya etomî a Îranê ket rojeva dîplomasiya cîhanê. Ligel rêveçûna vê gera civînan jî, lê raya giştî a navneteweyî gellek bi encama erênî a civînên vê carê jî dilxweş û hêvîdar nine. Ji ber ku çend dewreyên civînên berê hem û gihane binbesta siyasî. Piraniya çavdêrên siyasî dibêjin, Komara Îslamî a Îranê bi vê pêvajoyê du armancan dişopîne: Yekem, zexta welatên mezin ên cîhanê, nemaze welatên Ewrûpa û Amerîka li hemeber xwe kêm bike. Duyem, bi vê senaryoyê dem bikuje û bikre, heta ku bikare proseya çêkirin û bidestxistina bombeyên etomî bikemilîne û Uraniyûma meyandî bidest bixe. Çend roj berî rêveçûna van gotûbêjan, 2 navendên din ên etomî ên rejîam Komara Îslamî hatin eşkerekirin.




Karnasên Amerîkî dan zanîn, Komara Îslamî niha agahiyên pêwîst bo çêkirina bombeyên etomî bidest xistiye û ev yek gefek mezin bo ser tenahiya herêma Rojhilata Navîn û cîhanê ye.

Şiroveya taybet li ser vê mijarê di rûpela 6 de bixwînin...

## Peyama Sersaxî Ya PDKÎ Bo Malbata Ebdulmelik Firat



Bo hevalên xebatkar ên Partiya Maf û Azadiyan – HAK – PAR

Digel rêz û silavên germ

Gelek heyf û mixabin, me nûçeya koça dawî a xebatkarê navdar yê gelê me û neviyê Şêx Seîdê Pîran û Serokê bi rûmet yê partiya we, Partiya Maf û Azadiyan – HAK – PAR, Ebdulmelik Firat bihîst.

Em ji destdana kesayetiyekî wek Ebdulmelik Firat bi xisareke mezin bo gelê Kurd û bi taybet bo tevgera azadîxwazî ya Kurd bi giştî û nemaze HAK – PARê dizanin.

Bi navê Polîtburo ya PDKÎ, em serxweşiyê ji Partiya Maf û Azadiyan – HAK – PARê û malbata rêzdar ya wî nemirî dikin û xwe di xem û kovana jidestçûna wî xebatkarê mezin yê gelê me bi şirîk dizanin.

Ji kerema xwe, serxweşî û hevderdiya PDKÎ bi malbata binavûdeng a gelê Kurd, malbata Ebdulmelik Firat bigehînin.

Ruha wî şad be û serê gelê me sax be.

**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**02.10.2009**
**10.07.1388**

# Rapora Siyasî Ya Sekreterê Giştî Yê PDKÎ Bo Heftemîn Civîna Komîteya Navendî

**Agirî - Di rojên 15 – 18ê Îlona 2009an de, Komîteya Navendî ya PDKÎ, hilbijartî a Kongreya çardehem ya partiyê, heftemîn civîna xwe lidar xist û piştî 4 rojan dawî bi karê xwe anî. Di wê civînê de, Sekreterê Giştî yê PDKÎ, Mistefa Hicrî raporek siyasî pêşkêş kir. Ji ber giringiya wê raporê, emê beşek ji wê li jêr biweşînin:**

Yek ji pirsên giring ên navbera civîna berê û a vê carê ya me, pirsa hilbijartina Serok Komarîya Îranê bû. Seretayên berî hilbijartinê, hilbijartin bixwe û bûyerên piştî hilbijartinan sê pirsên giring bûn. Ji ber hinek sedeman ku me wê demê bas kir, di civîna Komîteya Navendî de me biryar da ku em wê hilbijartinê baykut bikin, sedema herî giring ew bû ku tu guhertinek bi ser rejîmê de nehatiye heta em di hilbijartinê de beşdar bin. Hinek rêxistin û aliyên din jî baykut kirin, hinek din jî baykut nekirin. Niha ku hilbijartin rêve çûye, belge û nerînên Komîteya Navendî ya PDKÎ li ser pirsa baykutkirina hilbijartinê hemû rast derketin holê, lê ligel wê jî, mixabin Komara Îslamî a Îranê karî bi komek komployan ku herdem li bere berê hilbijartinan rêve dibe, bala xelkê bo aliyê sindoqên dengdanê rakişîne.

Karê herî giring ku di wê derbarê de hat kirin, ew rûbirûbûn (munazire)ên televizyonî bûn ku di TVyên dewletî de hatin weşandin. Rûbirûbûna çar berbijarên Serok Komariyê wek kareke nû di Îranê de derket holê, bi taybet ji wî alî ve ku mohreyên rejîmê bi xwe behsa gendelî, bêşiyanî û bi giştî wan xalên lawaz dikirin ku hene û bi dehan sal dibe ji aliyê Opozîsyona Îranê û ji aliyê beşeke zêde ji xelkê Îranê ve tê baskirin û bi tawana gotina wan, xelk dihat girtin û herwiha zîndanî û îşkence dihat kirin û hemû cure tometek li wan dihat dan, lê di rûbirûbûnên televizyonî de mohreyên rejîmê bixwe, ku çar berbijar bûn, li ser şaşeya televizyonê ew bas dikirin. Berê jî her wisa bûye, di bere berê hilbijartinan de, çi hilbijartina Serok Komariyê û çi hilbijartina parlamenê, hinek hol û meydanê divekin ku berbijar hinek soz û qiraran bidin. Bi curekê ku bikarin bala xelkê bo aliyê hilbijartinan rabikşînin. Mixabin ew siyaseta rejîmê serkeftî bûye, ew yek ji pirsan bû, yan em bibêjin yek ji wan sedeman bû ku siyaseta rejîmê derbarê hilbijartinan ser xist.

Pirseke din hinek soz û qewl bûn ku berbijarên vê carê, bi taybet Kerûbî derbarê hinek azadiyan û pirsa netewî bas kirin. Wan mijaran jî bixwe meydana hilbijartinê germ kir û hinek kes dilxweş kirin ku wisa dizanîn guhertinek çêbûye, û digotin heta em bicih nemane, bila em têde beşdar bin. Lewra me dît ku rêjeya beşdaran di hilbijartinê de zêde û berçav bû. Wextê dibêjim berçav bû, merem ne ew e serjimêriya ku rejîma Komara Îslamî a Îranê ragehandiye, xelk bipejirîne, ji ber ku ew zanyariyên ku li hundirê welat gihane me, nîşan didin ku xelk li gor hilbijartinên berê, zêdetir başdarî kir. Ew yek bû sedema wê çendê ku rejîma Komara Îslamî mifaheke baş jê bistîne û bi wê sedemê bi xelkê navxwe û derve, bi taybet Ewropa û Amerîka biselimîne ku rejîma wan ji ber piştgiriya xelkê, niha jî rewa û berheqî heye.

Gelî hevalan! Hûn agahdar in ku Xameneyî heta di nimêja îna borî (îna berî dawîhatina Remezanê)de, di yek ji xutbeyên xwe de behsa opozîsyonê kir! xomeynyî got, Opozîsyon dibêj hitbar û bawerî ya navbera xelkê û hikûmetê ji nav çûye, baş e bawerî ji wê zêdetir? ku xelk bi wê qasê beşdarî kir! Pêwîst e em qala wê jî bikin ku di pêvajoya hilbijartinan de, Ewropa û Amerîka bi tevahî hêvîdar bûn ku ew xelkê beşdar bûye, wê carê her kes bibe Serok Komar, dikare bibe xwedî desthilat û bi selahiyetekê ku heye dê hinek gavên nû bavêje. Ger em li hilbijartinê tenê wek hilbijartin temaşe bikin, bê encamên piştî hilbijartinê, em dikarin bêjin ku hilbijartina wê carê a Serok Komariyê bo Komara Îslamî serkevtî bû. Lewra jî eger ew kar di wê xalê de bidawî bihata, dê pirsgirêkên gellek zêde ji xelkê re pêk bihatiban. Ji ber ku xelkê beşdarî kiriye, Serkkomarek ku bi dengê zêde tê hilbijartin, li gor nerîna raya giştî a navnetewî rewatî heye. Komara Îslamî jesta rewa û meşrûbûna xwe digre û vê carê karê berxwedanê bo opozîsyonê digel wê rejîmê li gor raya giştî a cîhanê gelek dijwartir dibû, lê me dît kar li vir bidawî nehat û xebata xelkê li dijî rejîmê piştî ragihandina encama hilbijartinê destpê kir. Berbijarên din bawer bûn ku di hilbijartinê de fêl û sextekarî hatiye kirin û ew dengên ku xelkê dane, bo Ehmedînejad nebûye, belku ew deng bo

> **"Di navbera hilbijartina gera neh heta dehem de tu guhertinek bi ser Komara Îslamî nehatibû ku hilbijartin azad be û xelk bikarin berbijarên xwe hilbijêrin"**



Mûsewî bûne. Encama wê nerazîbûnê bû sedema wê yekê ku sedan hezar kes ji xelkê nerazî hatin ser şeqaman û li dijî ragihandina encama hilbijartinê dirûşm avêtin û ew encam red kirin û herwiha daxwaz kirin hilbijartin were betal û hilweşandin.

Di rasî de kiryara rejîma Komara Îslamî di pêvajoya wan xwenîşandanan de, ne tenê ew bawerî û hitbara ku di pêvajoya hilbijartinê de bidest anîbû, li ber çavê raya giştî a cîhanê û xelkê Îranê ji dest da, belku hinde din bû sedem ku rûyê rasteqîn ê rejîma Komara Îslamî li ber çavê raya giştî a cîhanê û nemaze xelkê Îranê were eşkerekirin û heta ji bo wan kesan jî ku dilê xwe xweş kiribûn ku di wê hilbijartinê de dê guhertinek derkeve holê û di navbera çar kesan de, Serok Komarek ku ew dixwazin dê bê hilbijartin, şik û gumanek zêde anî rojevê.

Ger em xalên jar û lawaz ên wan meşan destnîşan bikin, yek ji wan ew bû ku rêberiyek demokrat tunebû ku bikare nerazîbûna xelkê rênîşanî û organîze bikira, ji ber ku guman têde tune ku ew xelkê hate ser şeqaman û di hilbijartinê de başdar bû, hemû ne ew bûn ku alîgirî ji Mûsewî yan Kerûbî û barbijarên din bikin, belku ew pêvajo bû xwe bû hêceteke baş ji bo ku hemû ew xelkê ku ji rejîmê nerazî bûn, tevlî wan xwenîşandanan bin û nerazîbûna xwe bi awayekî bikom û grûpî li dijî rejîmê bidin xuyakirin. Dema ew xwenîşandan destpê kirin, ligel ku karek binirx û hêja bû, lê ji ber nebûna rêberiyek demokrat, dirûşmên demokratîk ji aliyê rêberên wê ve neketin rojevê. Pirsên ku rêberên wê opozîsyonê yan xwenîşandanan didan xuyakirin, pirsa bihêzkirina Komara Îslamî û piştîvanî ji Weliyê Feqîh û berevanî ji qanûna bingehîn bûn, ku sê sedemên bingehîn û sereke ne ku xelkê Îranê kişandiye vê rojê. Bilî wê çendê ku xwenîşandanan rêberiyeke demokrat

tunebû, yekgirtî jî nebû. Çima yekgirtî nebû? Ji ber ku di bin organîzekirinek diyarîkirî de kom nebibûn, di rastî de tevgereke xuristî bû bo nîşandana nerazîbûnê. Lewra em dibînin ku ger di çend rojên destpêkê de gelek bihêz bû, lê hêdî hêdî hat qirkirin û gihîşte wî cihî ku bihêne ser banan û 'Elah Ekber' (Xwedê mezin e) bêjin, yan di hinek cihên Tehranê de civînên demkî pêk bînin, piştre ji hev dihatin dûrkirin.

Yek ji xalên din ên lawaz ên wan meşan, aliyê kêm di destpêkê de, ew bû ku her çiqas dikarî armancên pirr bilind hebe, lê di pirsa guhertina navbera Mûsewî û Ehmedînejad de bertesk ma, heta beşeke zêde a xelkê ew yek nediveşartin û dema ji wan pirs dikirin, digotin em li dijî Ehmedînejad xwenîşandanê dikin. Mûsewî jî dûhev behsa Weliyê Feqîh û giringiya Weliyê Feqîh û qanûna bingehîn dikir. Heta di bexşanmeyekê de ku li ser malpera wî jî hat belavkirin, bo wan kesan ku di meşan de beşdar dibin, şîreta wê yekê dikir nabe dirûşmên we di çarçoveya yasaya bingehîn û li dijî Komara Îslamî û Weliyê Feqîh bin. Ewên ku bi navê 'tevgera' kesk' di bin rêberiya Mûsewî de xwenîşandanên xwe rê dixistin, rê nedidan bilî dirûşmên xwe tu ala û çi dirûşmeke din bilind bikin. Hê çi nebibû, pêşiya dirûşmên xelkê digirtin.

Wextê ku mirov bi hûrî bala xwe didê, piraniya ew dirûşmên ku di xwenîşandanan de dihatin gotin, heta li hinek bas û nivîsarên ku di malperan de hatm weşandin, ji aliyê hinek rêxistinên siyasî ve ku xwe wek ronakbîr û pêşeng dizanîn, durist serdemê şorşê dihat berçav ku em têde beşdar bûn. Wê demê nifşa me di şoreşê de beşdar bû, kêm hebûn fikir ji wê çendê bikin piştî wê hikûmetê, dê bibe çi? Tenê behs ji wê dihat kirin bila Şa here, belê Şa çû, lê ewa hat serê me û cihê Şa girt, niha hemû li berçavê me ye. Niha jî ew hemû gorîdan û zîndanîkişane ji ber wê yekê ye ku Komara Îslamî biparêzin û Ehemdînejad ji ortê rabe û Mûsewî were. Mûsewî di yek ji axaftinên xwe de, heta pesna pesnkira Weliyê Feqîh da û got: "Weliyê Feqîh ji destpêka Şoreşê heta niha em ji kodetaçî û otonomîxwazan parastine."

Wek Mûsewî û Kerûbî û Xatemî, wan tiştan bêjin û li ser wan biryarê bidin, heta niha jî tiştekî diyar a siyasî ku pirseke nû derxe holê, tune. Niha daxwazên dawî ên wan ew in ku dixwazin wê şoreşê vegerînin bo serdemê Xomeynî, ku ger bikarin wî karî bikin, vegeryan bo 30 sal berî niha ye. Ma di serdemê Xomeynî de ew cinayetên ku niha hene, çi nebûn? Xomeynî mabû dema ku komkujiya girtiyên siyasî destpê kir û destavêtin bi wan keçan dihat kirin



Endamên rêberiya PDKÎ, di destpêka 7mîn civîna Komîteya Navendî de, bo Şehîdên rêya rizgariya Kurdistanê deqîqeyek bi bêdengî bi piyan rawestan

ku girtiyên siyasî wir de bûn, nediviya bi perdeyê bekaret (keçînî) werin kuştin û biçin Beheştê. Ew cinayet û karesat di serdemê Xomenyî de destpê kiriye û niha jî ewa ku xelk dikişîne, mîrata wê şoreşê ye ku Xomeynî serokê wê bû, lê niha piştî sî salan divê xelk di rêya vegerandina şoreşê bo dewrana Xomeynî bên kuştin.

**"Hilbijartinên îsal li Îranê û bûyerên piştî wê, şîretên herî mezin bûn bo wan kesan ku guman li fêlbazî û derewînbûna wê rejîmê hebûn û bi dirûşmên wan hatin xapandin"**

Xalên lawaz ên wan meşan ew bû ku hejmarek berfireh ji qatên xelkê têde beşdarî nekirin, wek xelkê xizan û belengaz yê başûrê Tehranê û kedkaran, zêdetir çîna rewşenbîr an em bêjin qata naverast a civakê di meşan de beşdar bû û bazara Tehranê pirr kêm beşdarî kir.

Lê ligel hemû wan xalên jar û lawaz, nabe em haşayê ji wê yekê bikin ku wan meş û bûyeran bi giştî destkevtên baş jî hebû. Yek ji wan xalên bihêz ku em dikarin li vir behsa wê bikin, ew bû ku ger berê di navbera baskên rejîmê de cudahiya nerîn û fikran hebû û bi piçepiç bas jê dikirin, di pêvajoya hilbijartinê de û piştre eşkere bû. Ez bawer im ew valahiya ku bi vê eşkere gotinê kete nav baskên rejîmê, gelek ji wê mezintir e ku em bikarin bi hêsanî çareser bikin. Bila ez li vir di kewanekê de îşare bi wê çendê bikim, ligel wê çendê nakokî û dijheviya navbera baskên rejîmê zêde ye, lê bîra me neçe, ew nakokî û dubendî li ser pirsa desthilata şexsî ye, ne li ser azadî û demokrasî bo xelkê. Hemû ew balans jî ku hene, man û nemana wan girêdayî bi hebûna Komara Îslamî ye. Komara Îslamî bo hemûyan armanca dawî ye, lewra parastin, bihêzkirina Komara Îslamî û berevanî ji Komara Îslamî armanca hemûyan e, lê dibe di çarçoveya wê armancê de ku bo hemûyan giring e, nakokî û dijheviya nerînan hebin, yan bo gihîştin bi wê armancê ku parastina sîstemê ye, her yek ji wan dîtina xwe heye ku ligel yê din cuda ye, îca di çarçoveya wê rejîmê de her kes hewlê dide desthilata wî ji wê qasê ku heye, zêdetir be û îmkanatên zêdetir hebe.

Nakokî di wê çarçovê de ye, ji ber ku hemû bêguman wê yekê dizanin ku ger rojekê Komara Îslamî nemîne, eger jiyana wan jî nekeve xeterê, aliyê kêm êdî ji desthilat û postan dikevin. Lewra hemû di vê çarçoveyê de yekgirtî dibin, poşmanbûna Refsencanî ligel ew trundûtûjiya ku di destpêkê de hebû, badana wî bo aliyê Xameneyî durist di wê xalê de ye. Refsencanî ji ber du sedeman zû bada û vegeriya bo esla xwe: Yekem ew e ku Refsencanî ji yên din siyasîtir e, ew baş dizane ku ger Komara Îslamî bikeve metirsiyê, êdî bo wî û Mûsewî, Kerûbî û Xameneyî wek hev e. Duyem: Refsencanî mal û serweteke gellek zêde heye û divê biparêze, ji bo ku biparêze, nikare dijberiyê digel Xameneyî bike, bi taybet ku hest pê bikin, pirs cidî ye, xeter li dijî rejîmê ye û metirsiyê jê re pêk tîne. Ewa ku serokên reformîstan girtine û îfadeyan ji wan wedigerin, di girtîgehan de karekê tînin serê wan, ger hatin derve, êdî nevêrin bibizivin. Karekê tînin serê wan ku divê an welat bicih bihêlin, wek Kedîwer û hinek kesên din, yan di Îranê de bêdeng dirûnin.

Beşdariya xelkê di meşeke wiha berfireh de, piştî xwenîşandanên li dijî rejîma Paşatî, yekemîn car bû li dijî hikûmetê bi wê qasê berfireh dihat rojevê. Xelkê hest bi hebûna xwe dikir hest dikir, dikare nerîna xwe bibêje, ew pirseke giring bû. Xaleke din jî ew bû ku ger rejîma Komara Îslamî beşdarîkirina xelkê di hilbijartinan de wek nîşana rewayiya xwe dihesibîne û li gor raya giştî bo Komara Îslamî a Îranê wek



Serketerê Giştî yê PDKÎ, Mistefa Hicrî di dema pêşkêşkirina rapora siyasî bo 7mîn civîna Komîteya Navendî

destkevteke siyasî dihat hesibandin. Yekîtiya Ewropa, Amerîka û piraniya herî zêde a welatên Ewropayê, yek yek, li dijî ew serkut û qirkirin û kiryarên ku Komara Îslamî a Îranê dijî xelkê meşandin, nerazîbûna xwe dan xuyakirin û heta bo cara yekemîn piştî hatine serkara rejîma Komara Îslamî, dewletên herî kêm ên cîhanê pîrozbahî ji Ehmedînejad kirine. Di Komara Îslamî a Îranê de bo cara yekemîn e ku serokkomarek were ser kar ku mohreyên giring ên rejîmê ne tenê bi xwe wî pîroz nekin, heta bêjin ew Serok Komar wek Serkomarekî rewa û meşrû nazanin. Di warê siyasî de, bo xelkê ew destkevtên giring bûn ku di wê heyamê de derketine holê.

Ez hêvîdar im destkevtên din ên giring jî bidest hatibin, ew jî ewa ye ku hafizeya dîrokî a xelkê Îranê, bi taybet reformxwazan û ew aliyên siyasî ên ku bûne alahilgirê haydana xelkê bo beşdarîkirin di hilbijartinê de, xurt û bihêz be û di hilbijartinên din de, rejîm bi komployeke din a nû nekare ji hesta xelkê mifahê bistîne û bo armancên xwe bikar bîne û xelkê bikşîne ser sindoqên dengdanê, ji ber ku di rastî de, di navbera hilbijartina gera neh heta dehem de tu guhertinek bi ser Komara Îslamî nehatibû ku hilbijartin azad be û xelk bikarin berbijarên xwe hilbijêrin. Di hilbijartina dewreya nehan de, axaftinên Refsencanî li bîra me mane ku wê demê jî derbarê sextekarî û fêlkirinê piştî ragihandina encama hilbijartinan got: Ezê şikayeta xwe bibim ber baregeha xwedê: Lê beşek ji wî xelkî dubare jî hat xapandin û di hilbijartinan de beşdarî kir. Ev hilbijartin û bûyerên piştî wê, şîretên herî mezin bûn bo wan kesan ku guman li fêlbazî û derewînbûna wê rejîmê hebûn û bi dirûşmên wan hatin xapandin, bi wê hêviyê ku ew mesele bi yekcarî bi dawî were û çi din bi amadebûna wan li ser sindoqên dengdanê rewa û meşrûiyetê nedin rejîma Komara Îslamî. Di hilbijartinên rejîma Komara Îslamî de, bi taybet hilbijartinên Parlamen û Serok Komariyê de beşdar nebin. Ger ew yek were cih, dê bibe destkevteke gellek mezin bo xelkê û derbeyek giran li rejîmê û dikare bibe destpêka guhertinek mezin di pêvajoya bûyerên Îranê de ber bi azadî, demokrasî û anîne rojeva dirûşma azadîxwazî ku bi sûd û fêdeya xelkê be, ne bi qazancê grûpek an baskek ji baskên rejîma Komara Îslamî a Îranê.

Niha ger em lênêrînekê li wê hilbijartinê bikin, em senaryoyê wisa ferz bikin (her çiqas em dibêjin di dîrokê de eger tuneyeû mêj û ew e ku qewimî ye) ku piştî meş û xwenîşandanan Mûsewî bibûya Serok Komar, an ji wî qebûl bikirana ku bibe Serkomar, demekê em

## "Nakokî û dijheviya navbera baskên rejîma Komara Îslamî ya Îranê li ser pirsa desthilata şexsî ye, ne li ser azadî û demokrasî bo xelkê"

xwe li wir danînin ku ew piştgiriya ku xelkê li hundirê welat kir, li pey wê piştevaniya ku li Ewropa û Amerîka ji hilbijartinan hat kirin, encama meşê biba sedem ku Ehmedînejad rakin û Mûsewî bikin Serok Komar, hûn dizanin bo Îranê çi karesateke mezin dibû? Wê demê sîstem heman Komara Îslamî di bin siya Weliyê Feqîh û ew qanûna bingehîn de dibû ku niha heye, lê kesek dibû Serokomara ku cihê qebûla raya giştî dibû, xelkê Îranê jî dê dilê xwe pê xweş kiriye ku guhertinah pêk bîne. Wê demê heta sî salên din ew xelke divê kurê bike nav serê xwe heta carek din ji wan re biselime û bi cîhanê biselimînin Mûsewî çi cudahiyek digel Ehmedînejad tune. Careke din biselimîne ewa ku bandor heye û xelk tûşî wê rojreşiyê kiriye, sîstem e, ne Ehmedînejad, ne Mûsewî û yên din jî. Lewra ligel wê yekê ku em gellek xemgîn in ku komek ji ciwanên pak û kesên hestyar, azadîxwaz, xelkek welatparêz di girtîgehan de ne û di bin îşkenceyan de bêhurmetiyên herî mezin bi wan hatiye kirin. Xelkek zêde hatiye kuştin, heta niha jî jimareyek hatine bêserûşûnkirin, lêbelê ligel wê çendê de jî cihê kêfxweşiyê ye ku ew yek derneket holê.

Baskirin û şîrove û dahûrandina wan bûyerên ku qewimîne, di wî warî de ji me re giring in ku em bizanin pêşeroj dê ber bi kuderê biçe, ji ber ku divê em li ser wê pêşîneyê bernama karê xwe danînin. Yek ji wan haletên ku pêşdîtin tê kirin, ew e ku hewlê didin di nav xwe de ew mohreyên giring ên ku dijber in, dubare ber bi aliyê xwe rakişînin û hevdem digel wê yekê, kesên naskirî û binavûdeng ên derdora Mûsewî û Kerûbî û ên din digirin. Reformxwazên binavûdeng ku di wan bûyeran de rol û bandor hebûn, di girtîgehan de dê wisa jê bikin ku êdî deng ji wan neyê, piştre dê hêdî hêdî serbest berdin, eger kar bi wê yekê jî bi dawî nehat, dûr nine ku serokên wê pêvajoyê û ji hemûyan giringtir Kerûbî û Mûsewî bigrin û di girtîgehê de bêdeng bikin. Yan her yek ji wan bi awayekê ji holê rakin, her wek nimûneyên ku di derbazbûyî de jî pêk hatiye. Bi kurtî, ji meydan derkirina wan û ji holê rakirina wan di rojevê de ye. Axaftinên Xameneyî di nimêja roja îna borî de, tu gumanek di vê derbarê de nehiştiye. Her piştî wê jî mijûl e axavtinên Xameneyî tên cîbicîkirin. Min guhdarî kir ku Ehmedînejad li dadgehê şikayet ji Ayetulah Saneî kiriye, ku navbirî di axavtina xwe de li bajarê Reşt li dijî Ehmedînejad qise kiriye. Saneî yek ji mohreyên binavûdeng e û di warê olî de naskirî ye, bo çavtirsandina xelkê, xwendekar ku cewhera bingehîn a xwenîşandan bûn, Xameneyî di axavtina xwe de behsa wê yekê kir ku ew di beşa zanistên mirovî de dersê dixwînin ku nêzîk bi 2 milyon kes in, di bin bandora çanda Rojava de şik û guman ji wan re pêk hatiye û li dijî rejîma Komara Îslamî ne. Niha wisa dixuye ku: yekem, eger bo wan gellek giran kuta nebe, bo demekê zanîngehan dabixin, aliyê kêm kolêjên zanistên mirovî di wê heyamê de carek din ji mamoste û xwendekrana paksazî bikin, li cihê wan mamostayên ku radikin, hin kesan danên ku ser bi wan xwe bin û îdeolojiya wan pêşde bibin, armanca wan en ew e ku ew ser dikevin, ji ber ku mesela zanist û zanîngehê ne tiştek in ku bi tevahî bi dilê rejîmê biçe pêş, lê pêvajoya bûyeran ber bi wê aqar û rewşê diçe.

Di pêşerojê de rejîma Komara Îslamî ji niha hovanetir dê digel opozîsyonê riftarê bike, ji ber ku ditirse. Bila li bîra me neçe, rejîm hemû wan tundûtûjiyan ji tirsan dike, ew baş dizanin ku ger derfeta

herî kêm bo xelkê pêk bihê, êdî Komara Îslamî a Îranê namîne û bi taybet meşên berfireh ên vê carê zenga xeterê ji wan re lêxistîye. Lewra tirs, lerizîn û nigeraniyeke zêde li nemana hikûmeta xwe hene. Madem pirsa nemana rejîmê di holê de ye, ew bo mana xwe dilovaniyê bi tu kesî nakin û amade ne ji kesên serve re serkut bikin. Xameneyî di nimêja roja înê de, basa wan rastiyan kir û naveroka axaftinên wî di vê derbarê de ew bû ku bila dilê Kerûbî û Mûsewî û ên din bi wê yekê xweş nebe, bêjin Komara Îslamî pêk anîne û xizmet kirine. Bi vî awayî renge bikarin bo heyamekê aramiyekê pêk bînin û xelkê çavtirsîn bikin ku dengê wan dernekeve, lê ew aramiya berî bahozê dibe, dengnekirin nayê wateya rizamendiya xelkê, belkî her di wê demê de hêrs û bêzariya xelkê zêdetir dibe. Pirsgirêkên rejîma Îranê roj li pey rojê dê zêdetir bin, nerazîbûnên kesayetiyên mezin ên oldar yên Şîe li wê şêwaza rêvebirina hikûmetê zêdetir û zext û givaşa herî zêde dikeve ser Reformxwazan.

Encama vê siyasetê dibe ew yek ku ji ber ku pirsgirêkên ku di wê heyamê de jê re derdikevin holê û nikare çareser bike û jê re nayên çareserkirin, ber bi lawaziyê diçe, kêşe û arîşe tenê ne ên navxweyî ne, belku di siyaseta navneteweyî de jî tûşî pirsgirêkên zêdetir dibe, lê dîsan piştî wê bahozê jî hemû tiştek girêdayî bi wê yekê ye ku nerazîbûnên xelkê dê çawa werin organîzekirin û dirûşmên ku di pêşerojê de dê bikevin rojevê, di çi çarçoveyê de dibin? Gelo ew xelk bêzar bûye, xelkê ku hemû ew zext û tundûtûjî li ser in û di pêşerojê de dê zêdetir bin, amade ye her wisa di bin rêberî û rênîşanî ya hin rêberan de nirx û bihayan bide ku di fikra bihêzkirina rejîma Komara Îslamî de ne û wek niha xelkê li daxistî ya bazneya Komara Îslamî bizivirînin û bi guhertina mohreyên rejîmê di navxwe de û dabînbûna berjewendiyên xwe razî bin? yan xelkê yekgirtî bikin û hay bidin bo guhertina rejîmê û serkaranîna rejîmeke demokratîk li ser xwestek û viyana xelkê? Di hemû qonaxekê de ku meş û guhertinek dikeve rojevê, mesela me wek Îraniyek û wek Kurdek di vê qonaxê de, ango di qonaxa berî bahozê de, me erkekî taybet heye, divê em li ser wê rewşa ku di derbasbûyî de hebûye, xelkê hişyar bikin. Divê em van rastiyan bînin bîra xelkê, piraniya wan dirûşm û bernameyên ku xelkê di çarçova Komara Îslamî a Îranê de hebû û jê re nirx daye, pêwîst e em xelkê li wê rastiyê şiyar bikin ku demekê ew dikarin ji destê Komara Îslamî rizgar bin demokrasiyê bidest bînin ku ew rejîma nemîne û ji holê rabe. Divê em bala xelkê ber bi wê rastiyê bikşînin ku bi navê demokrasî û azadiyê, guhertina mohreyên rejîma Komara Îslamî ku di cinayetên wê hikûmetê de beşdar bûn, çiqas xeter e û çiqas dikare careke din wî xelkî û nifşên pêşerojê bi awayekî din di bin heman eba û mendîlê de bixe bin çengên Komara Îslamî. Bi taybet di wê derbarê de, divê em bala xelkê zêdetir ber bi wî alî rakişînin ku wan bûyeran, nemaze xwenîşandanan derxist holê, digel ku kesên bi hest di nav Kurdan de hene, xelk heye ku di hilbijartinê de beşdar bûn, lê di meşan de ji bilî bajarê Kirmaşan, ew jî bi rêjeyekî kêm, tiştekî berçav nebû, neteweyên din di meş û xwenîşandanan de beşdarî nekirine, divê em di vê derbarê de xelkê zêde rênimayî bikin ku guhertina mohreyên rejîmê nikare bo wan azadiyê bi diyarî bîne û wan ji çengên rejîma Komara Îslamî a Îranê rizgar bike. Lewra nabe di çarçova vê pirsê de, em xebat û tekoşîna xwe bertesk bikin, belku divê bo rizgarbûn ji rêjîma Komara Îslamî a Îranê hemû hewla xwe bidin. Divê meş, dijkiryar, tekoşîna wan û hemû tiştek dûr ji rejîma Komara Îslamî a Îranê be.

Derbarê *tevgera kesek,* pêwîst e em zêdetir şiyar û hûrbîn bin. Yekem, divê em di vê qonaxê de xebatê bikin, bi taybet niha pêre digel hemû serokên opozîsyonê, mebesta min yên ku di hundirê welat de ne, zêdetir di peywendiyan de bin û divê em hizr û nerînên xwe li ser bûyeran ji wan re bêjin û xwe li wan nêzîk bikin û em li bernameyên wan agahdar bin. Em ne bawer im ku em bikarin hemû siyaseta Opozîsyona Îranê biguherînin, lê nêzîkbûna me li wan û guhgirtina me ji wan û guhdarîkirina wan jî li gotinên me, dikare bibe alîkar bo pêvajoyê. Hinek ji hêzên Opozîsyona Îranê li hundirê welat şik û guman û tirs û lerzek heye û xwe bê piştevan dibînin, bila hest bikin PDKÎ di çarçoveya dûrketina wan ji Komara Îslamî a Îranê de û gihîştin bi demokrasiyê piştgiriyê ji wan dike. Bila bizanin xelkê Kurd li Kurdistana Îranê ji bo wê yekê nirxê nadin ku mohreyên rejîmê biguherînin. Divê em wê yekê bînin bîra wan ku em di çarçova azadî û demokrasiyê de amade ne wek berê alahilgirê demokrasî û berxwedan li hemberî rejîmê bin, eger di wê rêyê de em goriyan jî bidin, amade ne, her wek berêjî me gorî dane. Heta hinek ji kesayetiyên navdar ên Îranî hene û dibe di nav Meleyan de jî hebe ku piştgiriya me bo bihêzbûna wan bi bandor dibe, divê em ligel yekîtiyên xwendekaran têkiliyê bikin û nerînên xwe ji wan re bêjin. di vê derbarê de divê em hem bi karê rêxistinî û bi diyarîkirina kesan û peywendîkirina rasterast û hem bi rêya ragihandinên giştî, wê siyasetê teblîx û belav bikin. Ji bo ku di pêşerojê de, piştî ku 'aramî ya piştî bahozê' ku serhildan destpê dikin, aliyê kêm beşek ji gumana xelkê ji holê rabe û em wan li fikra guhertina mohreyên rejîma Komara Îslamî a Îranê dûr bixin.

> **"Guhertina mohreyên rejîmê nikare bo wan azadiyê bi diyarî bîne û wan ji çengên rejîma Komara Îslamî a Îranê rizgar bike"**

Di derbarê pirsa Îranê û meseleyên navneteweyî de, Komara Îslamî a Îranê li gor civîna şeşem a Komîteya Navendî a PDKÎ, ferqek kiriye. Me di civîna berê de basa wê kir ku Komara Îslamî a Îranê di herêma Rojhilata Navîn de bihêz e û me bi hûrî îşare pê kir ku li Filistîn wek Hemas û di welatên din ên Kendavê de mohreyên xwe heye û di wan cihan de xwedî hêz e û peywendiya wê bi Rûsya re her germ e, digel Çîn û Amerîkaya Latîn pirr nêzîk e, niha jî ew têkilî her di cihê xwe de mane, bi yek ferq û cudahiya kêm ku ew meş û xwenîşandanên nerazîbûnê û ew rewşa ku piştî hilbijartinê di Îranê de derket holê, renge bandora kêm li ser dîtin û nerînên wan aliyan li ser rejîmê bi awayekî piratîkî danîbe, lewra ez dibêjim bandora kêm, çimku heta niha Komara Îslamî ew şiyan û karîna madî (dirangî) heye ku ew bi pere ragirtine û pere bide wan, ew aliyên ku nifûz têde kiriye, di warê olî de nifûza Komara Îslamî li ser wan bi cudahiyek kêm her maye, lê li hinek cihan pêşde jî çûye. Di asta navneteweyî de jî, Ewropa aliyê herî mezin ê dan û standinên bi Îranê re ye, ligel wê çendê ku dorpêç li ser Îranê hene û bi xwe jî biryar dane. Niha bi sedan şîrketên Otrîşî di Îranê de mijûlî karkirinê ne, Almnya niha herî zêde bazirganî digel Îranê heye û heta alav û amûrên Amerîkî jî bi buhayek girantir digihe Îranê, ji ber ku Komara Îslamî a Îranê ew qas pere û îmkanata madî heye ku bikare berjewendiya wan dabîn û misoger bike. Rast e ew tişt bi bihayek girantir jê re xilas dibe, lê ewa ku jê re hewce ye bo makîna şer bo pêşdebirina kar û bernameyên xwe ji wê rêyê ve peyda dike, lewra di vê derbarê de cudahiyek xuya û berçav derneketiye holê.

Pirsek ku niha ne ron û eşkere ye, lê dikare hinek pêşdîtin li ser werin kirin, mesela meyandina Uraniyûmê ku yek ji nûçeyên giring û rojeva nûçeyên cîhanê

**Dom di rûpela 7'an de**

**RONÎ**

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re



**Ebdullah Hicab**

# Zêdegaviya Ku Dê Belayê Rast Bike

Komara Îslamî ne bi xelkê welat re rast e, ne ji civaka cîhanî re rastiyan dibêje. Vajîkirina rastiyan û serûbin nîşandana bûyeran êdî weke beşek ji cewherê felsefeya rêjîmê lê hatiye û nikare kesê bixapîne. Di dema şanogeriya îsal ya hilbijartina serokkomariyê de, karbidest û berendamên hilbijartinê bi xwe jî beşek ji fen, xap û derewên serok û kadrên birêveberiya rêjîmê eşkere kirin. Lewma eşkerekirina 2 navendên din yên xebata navikî (nukleer) a Tehranê ku heya niha veşartî bûn, zêde kesê ecêbgirtî nake. Tenê tirsa ji belaya ku ji ber wan zêdegaviyan li benda gelên Îranê ye zêde dike.

Hema bêy eşkerebûna wan 2 navendên nû jî, tu guman nebû ku Komara Îslamî bi awayek nepenî hewl dide xwe bigihîne teknolojiya çekên etomî. Derketina belgeyên nû li ser wan 2 navendên etomî jî nayê wê manayê ku êdî hemû aliyên pirojeya etomî ya rêjîma Komara Îslamî derketine holê. Rêjîm bi biryar e ku ev riya girtiye pêşiya xwe heta dawî bajo û di dawiyê de çekên etomî bi dest bixe. Her kes an aliyek ku encamek din ji wan hewlên rêjîmê derbixe, bi tenê xwe dixapîne û berjewendiyê xwe di hebûna rêjîmek dijî gelî û tundajo ya weke rêjîma Komara Îslamî de dibîne.

Hewlên bidestxistina çekên navikî wê kengê bigîje encamê, di serî de bi hindê re girêdayî ye ku Îran kengê beşa dawî ya projeyên ku kar li ser dike, bi dawî bîne. Ji bo wê çendê alîkariya Rûsiya û Çîn pir giring e. Lê her du welat jî dixwazin piroje zêde dirêj be ku hem zexta Rojava li ser wan kêm be, hem buhayê alav û amûrên ku Îranê pêwîstin zêde be heya ev wan emrazan bi buhayê herî giran bifroşin rêjîma Îranê. Pirs ev e ku gelo çima rêjîm wiha bi îsrar ji çekên komkujiyê digere. û eger hat û ev teknolojî gehande encama dawî, dê Îranek xwediyê çekên etomî bikare bi zexta çek û teknolojiya navikî xwe û berjewendiyên welat biparêze.

Di stratêjiya cîhanî ya Komara Îslamî de damezrandina rêjîmên hevbîr, ciyek pir bilind digre. Felsefeya "şandina şoreşê ji bo derveyî Îranê" hê li cem serok û karbidestên rêjîmê dijî. Lewma mebesta sereke ya Tehranê ji xurtkirina bingeha leşkerî û xwe pirçekkirin di warê etomî de, ev e ku ji pilan û pirojeyên xwe yên siyasî re piştgiriya leşkerî çê bike. Bi alîkariya grûpên tundajo li welatên cîran û di asta Rojhilata Navîn de, rêjîmê torek ji tundajoyan ava kiriye ku li gor felsefeya Wilayetê Feqîh tev digerin. Ev hêjmoniya îdeolojîk, li gor dîtina Komara Îslamî dê demekê xwedî encam be ku tev li hêjmoniya siyasî bi riya serbazî ve be.

Her çend tevgerên hevbîr ên Komara Îslamî ji desthilatdariyê nêzîk dibin, Îran hin zêde pêwîst dizane serweriya xwe ya leşkerî di herêmê de bihêz bike. Weke çawan Yekîtiya Sovyetê bi riya hevbîr û hevpeymanên xwe ve sînorê desthilat û karîgeriya xwe zêde dikir, Komara Îslamî jî amadekariya pilaneke weha dike. Dema teknolojiya çekên etomî gehîşte encamek erênî, desthilata etomî ya Weliyê Feqîh dê karîgeriya rasterast danê ser bûyer û pêşveçûna pêvajoya nû ya siyasî li hemû herêmê.

Îranê, ji beşek ji birêveberiya nû ya şîe li Îraqê bi der, bi hemû cîranên xwe re nakokî û netifaqî heye. Netifaqî ne tenê li ser şêweya desthilatdariyê ye, belkû şêweya hevpeymaniyên cîhanî, berjewendiyên abûrî û heta şêweya jiyana civakî jî digre. Beşek ji wan pirsgirêkan dizivirin ser dema pêş damezrandina Komara Îslamî û mijara serweriya neteweyî bi ser hin herêmên cografî tîne rojevê. Hebûna cîranên Ereb bi piştîvanên xurt, Turkiyê bi hevpeymanên xwe yên bi hêz, Pakistan bi çekên etomî û hemû welatên din bi berjewendî û stratêjiyên cuda ve, zêde Îranê li ser projeya çekên etomî rijd dike.

Di asta navneteweyî de jî Tehran niha xwe weke cemserek nû ya siyasî temaşe dike. Ji ber ku hin desthilatdarên dijberî siyaseta Rojava weke Hugo Chavez sîgnalên wisa didin ku li bendê ne bi Ehmedînijad re hevpeymaniyek nû ya cîhanî çê bikin. Hem ciyê jeopolîtîk û hem jî îmkanên abûrî yen ku di destê Îranê de hene, wê hêviyê didin Tehranê ku weke hêzek mezin ya herêmî xwe nîşan bide ku di asta cîhanî de jî xwedî desthilat e. Îrana xwediyê teknolojiya çekên etomî, vê derfetê pêk tîne ku hêjmoniya Tehranê bi ser hevpeymanên nû de çê be.

Mijara aştiya Rojhilata Navîn jî giringiya xwe ji projeya çekên etomî ya Îranê re heye. Digel bê prensîpî û bêrêziya ku karbidestên Tehranê ji hemû urf, edet, pîvan û peymanên navneteweyî re heyî, nayê payîn ku meleyên desthilatdar hin nezaniyê bikin ku şiyana xwe ya etomî li hember Îsraîlê bi kar bînin. Lê gefên li hember Îsraîlê, kêrî pilan û projeyên din yên Komara Îslamî tên. Rêjîm dizane heya Îsraîl bi cîranên xwe re di aştiyê de nejî, çi îstiqrar li welatên Erebî çê nabe. û bêîstiqrarî li wan welatan, zemîneyê ji bo pêşvebirina bernameyên siyasî yên Komara Îslamî li wan welatan xweş dike. Îrana xwediyê çekê etomî dê pêvajoya aştiya Rojhilata Navîn bi paş bixe. Ev yek derfetê dide Tehranê ku karîgeriya xwe li ser hevpeymanên xwe yên tundrew ji bo pêşvebirina pilanên xwe yên stratêjîk bi kar bîne.

Lê Îran çiqas ji bidestxistina çekên etomî nêzîk be, hin ji asayiş û ewlekariyê dûr dikeve. Pirojeya etomî ya Îranê di çend waran de dikare Îranê ber bi çarereşiyê ve bibe. Berî her tiştî rêjîmê ev îmkan nîne ku ewlekariya navendên etomî, an xwezaya derdorê biparêze. Felsefeya Komara Îslamî ku mirovan weke emraz ji bo gehîştin bi armancên xwe bi kar tîne, wê tirsê xurt dike ku pilan û projeyên navikî ya rêjîmê tenê bi wê meremê ye ku çi dibe bila bibe, tenê bi lez çekên etomî bi dest bixe. Lewma dûr nîne ku projeyên çekên etomî li nêzîk ciyê niştecîhbûna xelkê sivîl hatibin avakirin. Eger rojek ji rojan ji ber kêmasiyekê an ji ber xirabkarî û hêrişekê belayek çê be, wê demê gelên Îranê dê çi buhayekê bidin, dê çi bê serê derdorê û hwd bê, ji rêjîmê re giring nîne.

Hemû tehlîke li ciyê xwe, di warê ewlekarî, hêjmonî, siyasî û berjewendiyên herêmî de jî Komara Îslamî dê nekare bi projeya etomî, xwe û ewlekariya welat biparêze. Herwiha pir zehmet e ku rêjîma Komara Îslamî bikare xwe li ber buhayê zêdegaviyên xwe yên etomî bigre. Ji destpêkê re diyar bû ku projeya etomî ya Îranê dê herî zêde heta ku bimeşe û çi destkevtan bi dest bixe, lê buhayên ku gelên Îranê ji wê zêdegaviyê re didin, dê pir zêde be.

bi taybet di wan rojan de Komara Îslamî di bersiva daxwaza welatên 5 + 1 de paketeke pêşniyarî pêşkêş kiriye, bo çareserkirina pirsgirêkên cîhanê siyaseta Amerîka heta niha jî gotûbêjkirin digel Îranê ye û ragihand ku pêşwaziyê ji wê paketê dikin. Diyar e dema ku dibêjin amade ne gotûbêjan li ser bikin, ew nahê wê wateyê ku wê qebûl bikin. Ehmedînejad ragihand ku me dosya Etomî ya xwe girê daye û çi gotinek me li ser pirsa navikî a Îranê tune û amade nabin li ser wê meselê digel kesê gotûbêjê bikin. Ew paketa ku Îranê daye, bi îtirafa Ewropiyan bixwe, derbarê mesela Etomî çi tiştek têde tune, lê ew amade ne dubare bi Îranê re bicivin û gotûbêjan bikin. Niha pirs ew e ku gelo Ewrûpa û bi taybet Amerîka serencam razî dibe Komara Îslamî a Îranê zaxkirina Uraniyûmê bidomîne? Ger di dawiyê de bigihin wê encamê, dê destê Komara Îslamî zêdetir vala û betal be, dikare pirsgirêk û aloziyên zêdetir di herêmê de biafirîne û vêc û berjewendiyên Ewrûpa û Amerîka zêdetir bixe xeterê, lewra wisa dixuye di encam de rê nedin ku çeka navikî bidest bixe.

Lê ew encam kengî ye, pêşdîtin nayê wê kirin, ji ber ku ew sebr û hewsela ku Ewrûpa û Amerîka bo gotûbêjkirin digel Îranê heye û dilê wan pê xweş e ku ji wê rêyê ve Îranê dê were ser wê bawer û qenaetê ku dev ji meyandina Uraniyûmê bi armanca çêkirina çekên Etomî berde, niha nêzîk 10 sal e gotûbêjên navbera wan dom dikin û em nizanin dê heta kengî bidawî werin, lê di encam de dema ew jî li gotûbêjan bêhêvî dibin, rêyeke din a çareseriyê dê bigrin pêşberî xwe ku çaverê tê kirin dorpêçeke tundûtûjiyê dikare yek ji wan rêçareyan be. Dorpêçeke wisa, nerazîbûna xelkê û pirsgirêkan bo rejîma Komara Îslamî zêdetir dike, digel wê ku Rûsya heta niha bi dorpêçên tundûtûj re razî nine. Ez nabêjim bi van dorpêçan dê rejîma Komara Îslamî bihiloşe, ji ber ku çiqas tê bîr û fikra me, tu rejîmek bi dorpêça aborî nehatiye hilweşandin, lê gellek pirsgirêk jê re tên afirandin.

Hewcedariyên wê bi nirx û buhayeke girantir û zêde jê re xilas dibe û divê hewla zêdetir bo dabînkirina wan bide, herwiha dijberiyeke zêde û berfireh pê re tê kirin. Ewane hemû ew pirsgirêk in ku têne ser rêya rejîma Komara Îslamî. Pirsgirêkên navxwe û derve ku hatin baskirin, dest didin hev ji bo ku rejîm lawaztir be, dema ku rejîm jar û lawaztir dibe, yanî îmkana çalakî û têkoşîna xelkê bi awayên cur bi cur di Îranê de zêdetir dibe û em dikarin bêjin ku di rewşeke wiha de em gav bi gav dê bikarin xebat û tekoşîna xwe di hundir û derveyî welat de zêdetir bikin.

Ew pirse wisa dike ku em peywendiyên xwe di asta herêm û bi taybet Ewrûpa û Amerîka de çalaktir bikin, dibe wê demê meydana çalakiya peywendî û dîplomaisya me li Ewrûpa zêde vekirî bibe, divê têkiliya me bi opozîsyona derveyî welat re di her halekê de her hebe û em ji wan nêzîk bin, bi taybet di Kongreya Neteweyên Îrana Federal de, divê em karekê bikin ku di derbarê pirsa netewan de çeleng û aktîvtir bin. Di asta navneteweyî û hundirê welat de, divê em kar û çalakiyêne berfirehtir destpê bikin û zêdetir xelkê xwe kom bikin û wan rê bixin, ji bo ku digel guhertinan de, me destkevteke zêdetir bo xelkê xwe hebe.



**Endamên rêberiya PDKÎ, pirsên siyasî yên derbarê Îran, Kurdistan û herwiha pirsa Kurd nîqaş kirin.**

**Mafê Mirovan**



**Nivîsîn: Peter R. Baehr**
**Wergeran: Mecîd Heqî**

# Rola Mafê Mirovan Di Siyaseta Derve De

***Hevkarîkirin di siyaseta mafê mirovan de***

Ger sîstemek baş di hevkarîkirina siyasî derheq mafê mirovan di astê dewletî de were organîzekirin, dikare bibe hegerê hilbijartina siyasetên baş. Her ji ber wê yekê ye jî ku di hinek dewletan de mekanîzmek baş di navbera Wezareta Karê Derve û beşa mafê mirovan pêk hatiye. Gelek beşên Wezareta Derve dîtinên xwe li ser pêşniyara têkildar bi siysaeta mafê mirovan pêşkêş dikin, berî ku li astê serewe biryar li ser bê dan. Ew tiştê ku gelek caran vala ye, nebûna alîkairya di navbera beşên wezaretan de ye. Ewa bi wateya wê yekê tê ku belkî di astên xwarê ên wezaretê de hin beş basên bê elaqeya sîstematîk li ser bandora siyaseta mafê mirovan li ser pirsên din ên siyasî nîqaşê dikin. Ew pirs xasmayî dema wezaret basa pirsên derbarê meseleyên abûrî, bazirganiya navnetewî, alîkariya welatên cîhana sêyem û siyaseta berevaniyê dikin, zêdetir dikeve ber basê. Xuya ye Wezîrê Derve hertim dikaribe nigeraniyên derbarê mafê mirovan digel hevkarên xwe bas bike. Lê gelek car pirr direng basên han tên kirin. Siyaseteke mafê mirovan ya hevpareseng û baş hatî darêştin, ewa ye ku di dema minasib de li hemû beşên Wezareta Karê Dreve bikeve nîqaşê. Ewa diviya alîkariya wê yekê bike ku zemaneta (garantiya) wê yekê bê kirin, ku hemû dîtinên serekî hatibin berçavgirtin û hemû rêyên dariştina siyaseteka bikêr a siyaseta mafê mirovan amade bibin.

Pêkanîna beşek ku xwediyê pareseng û giraniya xwe be bi alîkariya beşên Wezareta Derve, ku bikare wek beşek li Wezareta Karê Dreve kar bike, ne karek hêsan e. Piraniya beşên wezaretê giraniyê didin ser berjewendiyên netewî û nigeraniyên netewî. Ewan pêwendiyên nêzîk digel sektorên taybetî yên xelkê welat û girûpên xwedî berjewendî hene, yên ku bi giştî li ser pirsên mafê mirovan bandor hene. Ew girûpên han pêwîst bi wê yekê nakin di bin zexta Wezaret a Derve de kar bikin, ji ber ku ew dizanin ku dîtinên wan dê di darêtina siyasetan de bên berçavgirtin. Di piraniya welatan de pêwendiyek germ di navbera civaka bazirganî û Wezareta Abûrî de hene, ku li hev behrê werdigirin. Xuya ye ku di Wezareteke han de berjewendiyên abûrî dê pêşiya pirsên mafên mirovan bikeve. Tiştê giring ewa ye ku dîtinên wan karbidestan ji aliyê karbidest û karmendên wezaretxaneyên din ên ku giraniyê didin mafên mirovan ve dikeve ber lêgerê.

Komele û saziyên ne dewletî (NGO) divê di pirsên mafê mirovan de giraniya xwe bidin ser Wezareta Derve. Ewa Wezareta Derve ye ku armanca wê birêvebirin û geşekirina pêwendiyên navnetewî ye û sirûştî ye ku giringiyê bide pirsên navnetewî. Tiştek din a nêzîkê pirsa mafê mirovan ewa ye ku diviya hewl bê dan welat îzole nebe û pêwendiyên welat bi cîhana derve re neyên qutkirin û her ji ber wê yekê ye ku divê hewl bê dan pêwendiyên baş digel welatên cîran û hevpeyman bê damezrandin. Bo welatên Ewrûpaya Rojava ewa bi wateya peywendiyên nêzîk digel welatên Yekîtiya Ewrûpa û Nato tê.

# Destavêtina Seksî Metodek Bo Şikandina Kesayetiya Mirovan



Hemîd Muxtarî

Piştî ku encama hilbijartina gera dehem a Serokkomariyê di Îranê de hat îlankirin û Mehmûd Ehmedînejad wek serkeftiyê hilbijartinê hat diyarîkirin û ragihandin, xelkê Îranê li dijî sextekariya eşkere a dewletê di gellek bajaran de dest dan meşên nerazîbûnê. Xelkek ku daxwaza wan tenê cîbicîkirina edaletê bû, bi awayên hovane ji aliyê hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê ve hatin kuştin, girtin û îşkencekirin. Hinek ji wan jî neçar man welatê xwe bi cî bihêlin û koçberî welatên din bin. Lê eva ku bal hemûyan balkêş bû, hebûna dengûbasê bikaranîna metodeke hovane a îşkencê bû ku piştî belavbûna nameya Mêhdî Kerûbî, yek ji damezrênerên rejîma Komara Îslamî û berbijarê dewra dehem a Serokkomariyê, ji bo Refsncanî, zêdetir di ragihandinên giştî de deng veda. Ew jî destavêtina seksî bû bo ser girtiyên vê dawiyê ku bona diyarkirina nerazîbûnê hatibûn ser şeqaman û daxwaza betalkirina hilbijartinê dikirin. Lê ewa ku gellek balkêş bû, eva bû ku rejîma Komara Îsamî a Îranê ku xwe bi parêzerê Îslamê di cîhanê de dizane û heta modêlên cil û bergan ji bo xelkê Îranê diyarî dike û kirêgirtî û memûrên xwe dişîne ser şeqaman bo girtina xort û keçên ku bi raya wan "hicaba" (lixwekirina) Îslamî neparastine û bi raya wan bi vê yekê dibin sebebê berfirehbûna fisad û gendeliya exlaqî di civakê de! çawa bi xwe di girtîgehan de destavêtina seksî ne tenê bo ser jin û keçan, belku bo ser kur û mêran jî dikin!?

Diyar e tecawuza zayendî, li Îranê ne metodek nû ye bo îşkencekirinê, heta fermana ev şêwe di destpêka bidestgirtina desthilatê ji aliyê karbidestên vê hikûmetê ve hat dan û di vî welatî de bikar hatiye, lê wê demê seba bihêznebûn û pêşnekevtina dezgehên ragihandinê, bi wê awayê ku hewce bû, di ragihandinan de berbas nediket. Ev kiryara hovane bêtir li ser neraziyên hikûmetê û cudahbîran dimeşe. Lê kesên ku deng û basên wê demê dişopandin, ji bîr nekirine dema ku hêzên rejîma Komara Îslamî endamên opozîsyona rejîmê nemaze yên ku keç bûn, bi dîl digirtin, beriya îdamkirina wan, destavêtina zayendî dikirin ser wan û piştre didaliqandin. Hêceta wan jî bo wê karê hovane û nemirovane eva bû ku digotin di Îslamê de hatiye ku ger keçek beriya mirinê mêr nekiribe, di axiretê de diçe cenetê!!



Her di vê derbarê de di sala 1985'an de, Saziya Lêborîna Navnetewî di raporekê de bi eşkere bas ji destavêtina seksî bo ser girtiyên mêr û jin ên siyasî dike. Saziya han di rapora xwe de bas ji keçek 23 salî bi nasnavê Leyla dike û dibêje:" Di dawiya sala 1982'an de Leyla bo heyamê 5 heftiyan di yek ji destbisergehên rejîmê de tê binçavkirin. Ew di vê heyamê kurt de çendîn caran bi tawana encamdana karên siyasî ketiye bin lêkolîn û lêpirsînê û ji wê hatiye xwastin ku navê hevkarên xwe eşkere bike. Di dawiyê de daxwazê jê hatiye kirin ku kincên xwe ber xwe bike û ew neçar kirine ku ji dev û ji piştve destavêtina seksî bikin ser. Leyla dema ku tê girtin, hêj nezewicîbû."

### Lê çima destavêtina seksî?

Gellek şeklên îşkencê hene ku rejîma Komara Îslamî a Îranê li dijî girtiyan, nemaze girtiyên siyasî û ramanê birêve dibe, wek: lêdan, şikandina dest û pêyan, şewitandina laşê girtiyan, birsîhêlana girtiyan, derbelêdan, dijûnên namûsî û wd... ku em dikarin ji zimanê girtiyên siyasî ên Îranê ve ku hêj zindî mane, bibihîsin.

Lê destavêtina seksî bo ser keç û xortên zîndanî, metodek cuda a îşkencê ye. Di vê şêwazê de kesên ku tên îşkencekirin, hem di warê pîskolojîkî de û hem di warê cismî de dikevin ber êrîşê. Ew kes piştre tûşî nexweşiyên derûnî dibin û heta ji jiyanê bêzar dibin û seh bi pûçbûnê dikin. Gellek ji wan dema ku ji girtîgehê azad dibin, piştî heyamek kurt dest didin xwekujiyê û dawiyê bi jiyana xwe tînin. Lê ew kesên ku destdirêjiyê dikin ser girtiyan û vê kiryarê encam didin, zêdetir keyfxweş dibin û ji vê karê hovane çêj û lezetê werdigirin. Çimku piraniya kesên ku karê îşkencê dikin, nexweşiya "sadist"ê anku (êşandin û eziyetkirina xelkê) hene û bi vê karê xwe pirr dilxweş dibin.

### Kî biryara encamdana destavêtina seksî der dike?

Bê şik di welatek wek Îranê de encamdana karek wisa bê îzn û agahdariya karbidestên payebilind ên Komara Îslamî cîbicî nabe. Xamineyî jî ku xwe bi nûnerê xwedê li ser erdê dizane!! û rêberê olî yê rejîma Komara Îslamî a Îranê ye, bo parastina bi nav hikûmeta xwe ya Îslamî û haydana û keyfxweşkirina wan cure mirovan ku ji bo hikûmeta Îslamî a wî xebatê dikin û herwiha bo bidestxistina rizayeta xwedê, rê dide karek han bê kirin û eva diyariyek e ku ji aliyê vî rêberê xwedêtirs ve bi îşkencekeran tê pêşkêşkirin!!

Nimûneya herî dawî, tecawuza seksî bi girtiyên meşên piştî hilbijartina îsal di girtîgehekê bi navê "Kehrîzek" de li derdora Tehranê bû ku dengvedanek mezin hebû. Rayedarên Komara Îslamî û bitaybet Xamineyî, piştî eşkerebûna wê girtîgehê û karên nemirovane ên memûrên wan, li şerman ew daxistin.

Rayedarên Komara Îslamî a Îranê bi pêşkêşkirina namûsa xelkê, di destbisergehan de, îşkencekerên xwe zêdetir hay dide da ku di karên xwe de çalaktir û ektîvtir bin.

Rêberên vê rejîmê bi mifahwergirin ji ola Îslamê wek mertalekê, berheqiyê didin karên xwe û hemû cur karên nemirovane encam didin. Li gor îdeolojiya rejîma Komara Îslamî, girtiyên siyasî, li dijî xwedê şer dikin! Lewra ew dikarin li dema bidîlgirtina wan di şer de, destavêtina seksî bikin ser wan. Karek ku kezeba her mirovekî dişewitîne. Lê desthilatdarên Îranê bi encamdana karên han dixwazin îrade û kesayetiya mirovan bişkînin û bi çavtirsandina xelkê parêzgariyê ji vê rejîma bi nav Îslamî bikin. Lewra desthilatdarên vê rejîmê bo mana xwe û rejîma xwe amade ne her karekê bikin. Xomeynî jî berê gotibû ku parastina rejîma Îslamî li Îranê ji her tiştî serwetir û girîngtir e.

# AFIRÎNERÎ Û BEHREDARÎ



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Hem û meyldariya karekî an jî têrîkirina cehd û xebata mirovan, behredariya wan kifş dike û lebat û bikêrhatîbûna wan derdixe holê.

Zanebûn û zanyariya mirovan a taybet û hêza behreyên wan ê veşartî jî gelek caran wekî jêhatîbûn û bikêrhatîbûna wan tête dîtin û ceribandin. Belê beriya wê, ji bo ku karzanatî û şarazatiya mirovan bête dîtin û pêşandan, divê pêşî merc û derfetên kifşkirina behreyên wan bêne afirandin. Lewre behreyên mirov yên nependî her gav li gora merc û derfetên civakê têne vedîtin. Kesên hunerwer û behredêr jî li gorî behre berhemên xwe têne venasîn û nirxandin.

Behreyên vegotin û axaftinê jî hin ji wan behreyên veşartî yên ku her car bi derfet û ceribîneriyên rojane re derdikevin holê, ne di civakê de heta ku mirov neaxive, tu kes nizane ew kes çi xweşikiyan di xwe de dihewîne. Heta ku mirov straneke nebêje tu kes nizane ku ew kes mirovekî/e dengbêj an stranbêj e. Heta ku mirov nenivîse an hestên xwe dernebire tu kes nizane ku ew mirov nivîskar an helbestvanekî hêja û berdar e. Ji bo wê divê pêşî derfet û fersend bêne afirandin. Hem ji bo vedîtin û venasîna behreyên mirov hem jî ji bo pêşxistin û geşedaniya behredariya wî/ê, hewcedarî bi xebat û lebatên takekes û kartêkeriya wî/ê heye. Çimkî, kî bi çi karî mijûl dibe, bêşik dê di wî karî de bi ser bikeve. Her wisa, di kîjan warî de bi ser bikevejî dê di wî warî de behre û berdariya xwe derbixe pêş. Girêdayê wê, dê ew ber û berhemên xwe jî pêşkêş bike û bide pêşandan.

Wekî ku li jor jî hate diyarkrin, behreyên mirov li gorî merc û derfetên rojane û li gorî fersend û derawayên demê têne bikaranîn û pêşandan. Her mirov xwedî behre ye û her mirov dikare di warekî de bi ser bikeve. Her mirov hêz û behreyên veşartî di dil û mêjiyê xwe de dihewîne. Belê ji bo ku ji hêz û behredariya kesên afirîner sûd bê wergirtin jî divê pêşî merc û derfet û cih û war bêne afirandin.

Bo nimûne: Heke ku ji aliyê mirovan de goga pêgogê nehatiba dahêrandin, îro gogbaz û pêgogvanên navdar ên mîna Pele, Maradona û Ronaldo û hwd. dernediketin holê û nav û dengê wan li dinê belav nedibû. Heke ku muzîk û alavên muzîkê nehatiba dahêrandin, îro tu kesî nikaribû behsa muzîknas û muzikarên mîna Mozart, Beethoven û Pavorotti û hwd bikira. Dîsa heke ku pênûs û nivîs nehatiba dahêrandin, navê wêjevanên mîna J.J. Rousseo, Tolstoy, Dostoyevskî, Gorkî, Leo Buscaglia û hwd nedihate bihîstin û helbestên helbestvanên mîna Ehmedê Xanî, Poul Eluard, Cegerxwîn, Ferîdûn, Ehmed Arif, Nazim Hikmet, William Butler Yeats û hwd nedihate xwedin.

Girêdayê vê yekê, heke ji bo ziman, çand û hunera kurdî ked û xebat nehatibûna kirin û ji bo derbirîna nirxên hest û bestên neteweyî merc û derfet nehatibûna afirandin, îro me nikaribû van rêzikan li vir binivîse û îro bi sedan nivîskar û helbestvanên kurd dernediketin holê.

Bi rastî ji bo nivîsandin û derbirîna zimanê kurdî îro gelek merc û derfet hatine bidestxistin. Ev ji bo her wêjevan û hunermendên kurd siûdek e. Ev, fersendeke bêhempa ye ji bo her kurdî. Divê her mirovê/a kurd xwe di van mercan de biceribîne. Û jin û mêr tev, hemû behreyên xwe bipêşve bixin û xislet û xisûsiyetên xwe bidin pêşandan. Carekê, divê astengî û qedexekirin ji bo me nebin spartek. Heke ku em dil û mêjiyê xwe azad bikin û biparêzin, qeyd û zincîr jî nikarin cest û hestên me dîl bigirin.

Veguherîn û geşedanî hergav bi saya kesên berxwedêr û berhemdêr bi dest dikeve. Behreyên veşartî bi wan re kifş dibin. Hest û best bi venasîna wan re difûrin. Pênûs di destê wan de radibin pêdarê û berhemên bêhempa bi hestên wan têne afirandin. Mirov bixwaze, hergav dikare behreyên xwe heta dawî pêşve bibe û di suxreya mirovahiyê de bide xebitandin. Belê berî wê, pêdivî behre û berhemdariya mirov heye. Mirov dikare xwe di her karî de biceribîne belê her mirov nikare di her karî de bi ser bikeve an serfirazên mezin pêk bîne. Herman Melville vê yekê bi vî awayî rave dike: "Ez her tiştî diceribînin, lê tiştê ku ez dikarim bikim, ez dikim." Wekî din jî, li ku dibe bila bibe, hergav hewcedarî bi ked xebatê û bîr û baweriyê heye.

Ku merc û derfet bêne afirandin mirov dikare di her warî de serkeftinên bêhempa bidest bixe û berhemên giranbuha biafirîne. Her çend ku jiyana mirov bi temenê wî/ê ve hatibe sînordarkirin jî, dîsa ew bi temenê xwe yê xurt, di wê jiyana xwe ya demdemî de dikare bi saya behre û berhemên xwe bigihîje radeyeke bilind û payeberz. J J. Rousseau dibêje : "Behre ew e, ku mirov pê bilind bibe, ne ku pê nizm bibe." Mirov dikare vê yekê li gotina Rousseau zêde bike û bibêje; behre û behrem ew e, ku mirov nemir dike.

*Kaniya Helbestan*

## Gora bê naz

**Jîla Husênî**



Ey nasê
Tu min nanasê?
Ez jî wek te
xelka welatê giryanê me
xem û firmêskên yara me
destê min jî mişt e...
ji diyariya tenêtiyê
Dilê min teng e
Serê min dîn
Sewdayekî şeyda ye
Ey ya nas
Ez destê tenêtiya te diguvêşim
Tu şengebiya hewşa me yî
gelek ji mêj de
te serê xwe bo min şorkiriye
Da porê te şehkin
Bangî min dikin...
navê min hildidin
hûn dixwazin...
tenêtiya we bilorînim
Ez nizanim...
xema xwe...
û xema we... û xemên gerdûnê
bi çi lorikan
bi çi lawikan dûr bixînim!
Te niha zanî?
Ez helbestvaneke penaber im
dibe nikaribim
qevdek gul bo te bînim
kêl û berên gora te
bixemilînim
Ezê li ser tenêtiya te
şûn bigerînim
û ev çend dêrana wek diyarî
bo te bînim.

**Çavkanî ji pitûka mirina rojê**

# Şiroveya Gotinên Pêşiyan

**Beşa 2**



**Çiya Mazî**

**Wateya ferhengî:** Gotinên pêşiyan, di erebî de; darbi-mesel, darabi-mesel, durûbu-emsal, mesel û beyan, derbas dibe. Di dema zimanê Osmanî de; ibare, beyan û îstilah hatiye gotin. Di Tirkî de; pêşî ta'bîr, dûre bûye atasozu. Di zimanên ewropî de; expresion, saying, idiom, parable, metaphor, paradox tê bi navkirin. Di Kurdî de; bi awayê "peyv" û "gotinên pêşiyan" derbas dibe. Di Kurdî de sedema "peyv" û "gotin" ji hevdû cihê dibe jî ji hevokê ye. Peyv tê wateya kelîmeyekê tenê, lê gotin tê wateya peyvên dibin hevok û bi wate. Li hin deverên Kurdî "peyv" jî di wateya "gotin"ê tê bikarînîn

Wateya wêjeyî: Gotinên Pêşiyan; Hevokên bi darazî, hukmî û bi pendî li nava gel ji bo vegotin û rexneya tiştekî, bûyerekê an ramanekê hatine zimên in.

Gotinên pêşiyan; li ser her tiştî hatine gotin. Li ser ajalan, li ser xwezayê, li ser erdnîgarîyê, li ser mirovan. Lê bi taybetî ev yekana bi awayê şibandinê hatine gotin. Şibandina mirovan bi ajalan, ya mirovan bi xwezayê, ya amûr û tiştan bi mirovan û bi hev re hatiye kirin. Ji ber wê yekê jî carinan gotinên herî ku mirov bibêje sivik in jî , dîsa wateya wan î giring heye. Heke ji alî mirovinan hatibin zimên û bi salan bi berdewamî hatibin gotin, nexwe hatine ecibandin.

Gotinên pêşiyan, li gor demê jî têne gotin û mayinde dimînin. Mînak; dibêje "*nalbeno li siwarî dinêre û hespê wî nal dike*". Xuya ye ku di dema ev gotin hatiye gotin "nalbendî" pir bi rûmet bûye û nêrîna nalbend jî bûye mînakek ji jiyanê.

Bi baweriya min , gotinên pêşiyan îro jî dibe ku bêne afirandin. Ne tenê pêşiyan gotine, mirovên iro jî diafirînin û bicîh dibin. Mabesta nav ku " yên pêşiyan" in, di demên berê de wekî aniha ewqas ragihandin tunebûye û ewqas zanebûna perwerdeyî tunebûye. Aniha pir gotinên xweş têne gotin. Ji ber ku pir têne gotin û mirov bi piranî gotinbêjê wan nasdike, mirov nabêje ev gotineke pêşiyan e. Lê ku hinek dem di ser re derbas bibe û mirov gotinbêjê wê jibîr bike an gotinbêjê wê winda bibe, ji xwe ew jî dibe gotineke pêşiyan. Wê di vê dema ku em têde ne jî pir gotin bêne afirandin. Lê belê wê bi demê re bêne hilbijartin, kîjan bêne ecibandin, ew dê mayinde bimînin.

Gotinên pêşiyan, bi taybetî ji bo edeba mirovan hatine gotin. Mirov dikare bibêje ku li cihê perwerdeyî kêm bûye an tune bûye û wekî me got ragihandin kêm bûye , hatine gotin. Heta mirov dikare bibêje ku jêderka gotinên pêşiyan li her welatî, gund in. Ji ber ku li gundan xwendin kêm e û mirov hê pir bi peyvê ramanên xwe der dikin. Ji xwe di şibandin û remzên gotinan de jî ev diyar dibe. Mînak: "nîr, das, ga, dar, devî, cot, kadîn, şivan û ajal". Li gundan mirovên zane her tim bûne afrinerên gotinan. Cihê perwerdehî lê tunebe û fêmkirina ji nivîsê kêm be, mirov bi awayekî asayî tiştan û bûyeran fêm nakin. Bi gelemperî jî mirovekî fîlozof nikare xwe bi hêsanî di nava civakek ji alî nivîse paşdemayî de bide fêmkirin. Mînakên li gor vê ramanê di dîrokê de pir henin. Wekî afarozkirina fîlozofên berê ji bo ramanek wan an gotineke wan. Îjar dema ku mirovên zane xwestine, bûyerekê, ramanekê bi pirê kesan bidin fêmkirin û zû bê fêmkirin, hevokên ku bandorê li hişê mirovan dikin bikar anîne.

Guherandina wan jî tiştekî xwezayî ye. Ji ber ku li gorî asta perwerdeyî û ragihandinê, dibe ku form an peyv bêne guherandin. Ji ber ku em dibêjin malê gel in, wê demê gel di çi astê de be dê li gorî xwe biguherîne, tu kes jî nikare rê li ber vê yekê bigire.

Carinan hinek gotin pir sivik xuya dibin, lê mirov nikare bibêje ku ev ne gotinên pêşiyan e. Wekî: dibêje "*li ser çavan birû hene*". Dema ev gotin tê bihîstin pir sivik xuya ye. Lê dema ku mirov ji bo selmandina tiştekî bibêje, mirov di wateya wê de baş têdigihêje û wê demê wateya wê î mecaz pir girîng dibe. Wateya wê î razber (soyut) hê pir li pêş e. Wekî mirov bibêje, Kurd henin û ne hewceyî nîqaşê ye, ev dibe wekî " *li ser çavan birû hene*"

Gotinên jêderka wan baweriya olî jî pir in. Lê piraniya wan gotinan, ne ku giş di pirtûkên pîroz de derbas bûne. Pirê wan gel ji xwe re afirandine. Pirê wan jî ku dema mirov ketine tengasiyê, hatine gotin. An çare ji derdê xwe re nedîtine û wekî ku xwe bi qederê ve girê dane û gotinên xwe jî li gor wê yekê anîne zimên. Lê di vê derê de, tenê xwe xapandinek an ji alî derûnî de xwerehetkirin heye. Dema ku mirov li dawiyê rast tên, an pirsgirêk dibin grêkutik dibêjin:"Çareya hertiştî heye".

Wekî mînak: "*Xwedê derd daye,derman ji daye*".

Hinek gotinên pêşiyan jî henin, mirov dikare bibêje ku ji alî rêziman ve rast nehatine gotin. Lê belê ji ber melodîya wan winda nebe, kêm hatine gotin. Heke rast bêne gotin ew melodî pê re namîne. Melodî û rêzbendî (kafiye) jî ji hinek gotinan re pir giring e. Ji ber ku dema bi melodî û rêzbendî têne gotin, ew dibin wekî têgînan û hê baş tê fêmkirin. Ango bi wê melodî û rêzbendiya xwe di hişê mirovan de bi cîh dibin.

Wekî mînak: "*xweziya sêwiya, ne hêvî ya*

Heke di vê gotinê de rastnivîs hebûya, diviyabû bi awayê " *xweziya sêwiyan ne hêvî ye*" bihata gotin. Lê melodî û, rêzbendiyek jê re çêbûye û bi nivîsek kêmanî hatiye holê. Peyva "*xweziyan*" bûye "*xweziya*" û tîpa pirhejmariyê "*n*" ji holê rabûye tenê "*a*" hatiye bikaranîn. Ew jî pirhejmariyê xuya dike. Di dawiyê de jî "*ya*" diviyabû "*ye*" bûya. Lê ji ber rêzbendiyê, bi peyva "*xweziya*" ve hatiye girêdan û tîpa "*a*" hatiye bikaranîn. Ev tîp herêma gotinê jî diyar dike ku li alî herêma torê tê gotin

Taybetiyên wan:

1- Darazî û hukmî ne.
2- Hevokên bi qalib in.
3- Malê gel in, nivîskarê wan ne diyar in.
4- Bi piranî mecazî ne.
5- Pendî ne, ji bo mirovan dibin pend û ronahî û şîret.
6- Netewî ne.

**Hukum û darazîbûna wan:**

Gotinên Pêşiyan hukum dikin, darazî ne. Mirovan didarizînin tawanbar dikin. Wekî "*xeta xwar ji gayê pîr de ye*". Ev gotin encama darizandinê ye, hukum e, dibêje "yê sûcdar gayê pîr" e, an rêveber e. Raste rast mirovên serok,rêveber û berpirsiyar têne tawanbarkirin. Dîsa wekî "*nok tê li kokê*". Di vê derê de jî pêşdarazî heye û wekî "bavê zarok xerab be, ew jî dê xerab be". An "bav baş be ew jî dê baş be".

Û mînakine din: "*tu pê li cihê şil nekî, tu naçerixî*" "*kesê xêrê naçe dêrê*". Ev giş encamên darizandinê ne û dawiya wan hukum e. Dibêje, tu vê tevgerê nekî ev bûyer nayê serê te an tu bikî, evê bê serê te.

**Bi qalibbûna wan:**

Gotinên Pêşiyan, di nava gel de bi demê re bûne qalib û bi rêzebendî (kafiye) hatine zimên. Bi qalibbûn û rêzebendîya wan, ji bo ku gotin neyên jibîrkirin û hê xweş bê fêmkirin an belav binin, hatiye holê . Wekî;

"*şêr şêr e, çi jin e çi mêr e*",
"*menêr li mirûz, binêr li gurûz*".
"*tiştê nêvî, jê neke hêvî*",
"*çavê li deriya xwelî li seriya*"
"*bira bira ye, hesab li derê ha ye*",

" bûk li hespê ye, kes nizane riskê kê ye" û wd.

**Gelêrîbûna wan (Malê gel in):**

Anonimbûna wan, ji xwe li jor pir baş tê fêmkirin. Mirov dikare bibêje pirên gotinên pêşiyan ji alî herkesî ve tê zanîn. Heta bi zarokan. Miroven xwende û ne xwende, jin, mêr herkes pir hindik gotinên pêşiyan zanin û bi kar tînin. Ev jî xuya dike ku gotinên pêşiyan ji nava gel derketiye û di nava gel de dijî. Lê belê di nava nivîs û wêjeyê de jî pir hatine bikaranîn. Di wêjeyê de ji bo vegotina hinek bûyeran tê bikaranîn û wekî mînak tê nivîsandin.

***Ji pirtûka "Ferhenga gotinên Pêşiyan***

# Yad

## Ji Keser

Ho, ey viyana evînê
Westiyame
Ji vî kore kundî
Yê ku xêncî awaza razanê di guhê min de naxwîne
Û xwe bi kîn e ji razanê!
Ey hêvênê evînê...
Dengê min dibihîzî
Di hawirdorê rojê de?
Were...
Carek din bi tenê
Li ser bilindahiyek nizim
Ji hez û evînê bêje bi min re...
Ji nûrhilatê
Di bêhna jiyanê...
Ho, ey mebesta evînê...
Di hembêza erdê de me
Û tu
Di bilindahiyek bêdawî de
Were û tenê
Bo carek din
Mêzeyî
Diyarê leinetiyan ke...
Nesozdaran binihêre
Serxweşê derevan
Di kurahiya zeman de
Ta ku serhedê dilşikandina min
Şibhê şervanên mêrxas
Çi bê tirs û xof
Êrîş dibin!
Rû reşan bibîne...
Şermezar ji kena te
Rûmetê derevînê xwe bi çi rengî
Di kirasê xêrxwazan de
Dipeçîvin
Heyf!...
Mêj de ye ew leinetî
Li ser bazneya vê axa xerîb
Wêneyê kiloniyalîzmê
Dikişînin!
Ah, ey viyana firîna perperoka li dor şemalê...
Tu ji kîjan
Roja veqetiyana pîroz
Hîn bûyî
Wiha bi sîngek mezin!
Li benda bi hev re şad bûnê bimînî?
Mêze ke
Çi bi lezgîn ez
Hêj di bin keproka çavnihêriyê de
Siya xeyalên xwe
Her roj digirîm!!!
Dema ku ji yarîkan
Diya min nehez dibû
Û ez
Di şopa tewbeyek ebedî
Di bin vê keprokê de
Diheviyam.
Cara yekan
Li wir min
Xeyalên xwe
Xav xav seh dikirin
Û bi befrokê rengîn re
Ber bi ba dikirin
Tê bi bîriya min
Diya reben...
Çiqas perîşan
Ji dev ba distandin
Û li ser saqeyên
Şivanên gund
Ji wan xeyalan
Kilûkên evînê dineqişandin...
Sipîndara xeyalên min niha
Bêtirsa hilveriyanê
Çiq û balên xwe
Bi germ û gur dihejîne...
Hêj ez
Evîndarê yarîkên zaroktiyê me,
Lê mixabin!!!...
Di quncikê mala min de
Mêvanek nehez!
Ji nifşa zivistanê, berrik raxistiye.
Mêze ke birînên destê min
Ne dewsa qemçûyanin
Û ne jî jana birînê,
Yê ku nehezkirî
Bi mala min ketiye
Wiha xedar destên min guhuşandine!!!...

# Çira

Dilşad Yusif



Delalê min
Dema Ez herî
Bi şerm li gel te
Wê demê bizane
Ez herî bêtir
Hez dikim ji te
Evîna te...
Çirayeke
Gûşeyên tarî
Di dilê min de
Rûnakî dike
Kaniyeke derbûye
Di hinava min de
Beyarên kûvî
Bi gol dike
Di Evênê de...
Xeyd tune
Jêr û jor tune
Sînor tune
Ez û tu tune
Di evînê de
Derev jî rastin
Wê gavê ezê
Derevek mezin
Li te bikim
Ez ji te...
Hez dikim.

Çavkanî ji pirtûka Bakûrê dil

agirî

**Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@gmail.com**

# Bi Parazîtan Pêşgîriya Temaşekirina Bernamên Satelîtan Dikin



Danîna parazîtên xurt bo pêşgîrîkirin ji bernamên televîzyonî ên satelîtên derveyî sînor tendurustiya xelkê Îranê xistiye xeterê.

**Agirî – DW:** Çendîn sal e ku hêzên ewlekarî û leşkerî ên Komara Îslamî a Îranê bo berlêgirtin ji temaşekirina bernameyên televizyonî û guhdarîkirina programên radyoyî ên derveyî sînor, parazîtên xurt û dijwar û antenên hewayî belav dike. Bi baweriya pirspor û karnasên peywendiyan, ew parazît û antenên hewayî tendurustiya xelkê dixin xeterê. Parazît herî zêde bo mêjî û xwînê metirsî heye. Ji ber ku meydanek mezin û berfireh a mexnatîsî pêk tê ku ji ber pêlên wê jiyana mirovan û jîngeh jî pîs dibe.

Komara Îsalmî dixwaze bi vî karî nehêle xelk bi hêsanî û rihetî bernameyên satelîtan temaşe bike û guhdariya radyoyên biyanî bike. Karbidestên Komara Îslamî bi vî karî tenê armanca astengkirin û sansorkirina medyayan dişopînin, lê pirsa jiyan û tendurustiya xelkê ji wan re ne giring e.

Ligel nigeranî û rexneyên xelkê û karnasên vî warî derbarê xetera wan pêlan bo ser tendurustiya xelkê, lê danîn û belavkirina parazîtan ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve her berdewam e.

# Daristan û Çêrîngehên Çiyayê Şaho Hatin Şewitandin



Heyamê çend mehan e ku hêzên rejîma Komara Îslamî a Îranê di devera Bêlewar ser bi bajarê Kamyaranê de cihgir bûne. Van hêzan hefteya borî bi hêceta manordanê, ji çend gundên devera Bêlewarê, çiyayê Şaho kirin armanca top û xumparebaranên xwe û bi wê sedemê rûberekî zêde ji daristan û çêrîngehên wî çiyayê Kurdistanê hatêne şewitandin.

Çalawe û Pîrxidir du warên giring in ku ji aliyê wan hêzan ve hatine şewitandin.

Hêjayî gotinê ye ku ew du warên wê devera Kurdistanê, daristan û çêrîngehên pir zêde hene ku devera Bêlewar bo xwedîkirina pez û malatên xwe mifahekî zêde jê werdigirin.

# 5 Partî û Saziyên Opozîsyona Komara Îslamî Ya Îranê Digel Cîgira Serokê Parlamena Ewrûpayê Hevdîtin Pêk Anîn



Nûnerên 5 partî û saziyên opozîsiyona Komara Îslamî a Îranê di hevdîtinek fermî de, roja 2ê Çiriya Pêşîn a 2009an, li avahiya Parlemana Ewrûpayê li Brukselê, digel Îzabel Dorant, Cîgira Serokê Parlamana Ewrûpayê û Seroka Partiya Keskên Beljîka civiyan û daxwaza piştevaniya berfirehtir û ektîvtir a YE'yê ji tevgera nerazîbûnên xelkê Îranê kirin.

PDKÎ û Komeleya Şoreşvanên Zehmetkêş ên Kurdistana Îranê wek du partiyên Kurdî û 3 saziyên din ên opozîsyonê bihev re beşdarî vê civînê bûn.

Di vê hevdîtinê de, ligel baskirin ji hevkariyên heveş ên wan 5 partiyan, nûnerên her yek ji wan partî û saziyan bi hûrî bername û helwêsta partiyên xwe xistin berbas û piştî guhertina hizr û rayan, şanda nûneratiya wan 5 partiyan ev pêşniyar kirin:

- Parlemana Ewrûpayê çend şandan bo lêkolînkirin û amadekririna raporan derbarê binpêkirina mafê mirovan, bûyerên piştî hilbijartina gera dehem a Serokkomariyê, girtin, îşkencekirina girtiyan û wd... pêk bîne û bişîne Îranê.
- Parlamena Ewrûpayê daxwaz ji Komara Îslamî a Îranê bike ku girtiyên siyasî serbest berde û kiryarên tundûtûj ên li dijî xwenîşanderan bisekinîne.
- Parlamena Ewrûpayê semînarekê pêk bîne da ku ev 5 partî û saziyên demokrat û azadîxwaz bikaribin helwest û nerînên xwe digel nûnerên Parlamena Ewrûpayê bînin berbas.

Hêjayî gotinê ye, endamê rêberiya PDKÎ, Dr. Xusro Ebdulahî wek nûnerê PDKÎ di vê civînê de beşdar bû.

Navê 5 partî û saziyên opozîsiyona Îranê ên beşdarî vê civînê ev in:

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê
Komeleya Şoreşger ya Zehmetkêşên Kurdistana Îranê
Rêxistina Yekîtiya Fedayiyên Xelkê Îranê
Rêxistina Yekîtiya Fedayiyên Xelkê Îranê (Piranî)
Şêwra Demkî ya Sosyalîstên Çep ên Îranê